

## Rasan dikare guhertinên herêmî bigehîne Îranê

»»»» R:4




## Şerê derûnî

»»»» R:2



## Komara Îslamî, "Herêma Kurdistan"eke çawa li Başûr dix-waze?

»»»» R:5



## Rasan û nîştimanfiroş

»»»» R:6



*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

*Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî*
*www.agirimedia.org Hejmar (287) 06-10-2016 Buha (1000) Tûmen*

# "Rasan" nasekine



**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê nûçeya vekişyana hêzên xwe li ser sînorên di navbera Kurdistana Rojhilat û Başûr de bi tewahî ret dike.**

Piştî vê ku di hinek medi-yayan de bi awayekî ar-mancdar nûçeya vekişyana hêza pêşmergeyên PDKÎ li herêmên sînorî yên Kurdis-tanê belav bûn, karbidestên têkilîdar ên Hizba Demokrat ên Kurdistana Îranê, ev nûçe bi tewahî ret kirin.
Di vê derheqê de Rostem Cehangîrî endamê Deft-era Siyasî û berpirsê Şêvra Leşkirî ya PDKÎ di hevpey-vînekê de digel TISHK TV ragehand ku: "Vekişiyana me ne rast e, û me di tu civînekê de tiştekê weha bas nekiriye, û em tu zext û givaşekê jî qebûl nakin, û ez vê nûçeyê bi berpirsyarî ve ret dikim".

Cehangîrî tekez kir ku: "Çaxê me biryar da ku qonaxeke nû ji xebat û tekoşîna xwe li Kurdistana Rojhilat dest pê bikin, me hemû aliyên vê yekê şirove kirine û herweha me destê alîkariyê bo hemû xortên Kurdanê dirêj kir da ku di vê pêxemê de alîkarê me bin, û çavnihêriya me ji birayêm me li Başûr jî eva bû, û eva ye ku aliyê kêm, hekî alîkariya me nakin, bila astengan li ser rêya xebata me çê nekin, jiber ku xebata me yê îro, pêpikên deshilata dujminê me xistine lerizînê, û dibe piştevaneke bihêz bo Herêma Kurdistanê jî, ku êdî rê nedin rejîm zext û givaşê bixe ser herêmê, yan jî herêmê bike meydana cilîdanê ya xwe".

Berpirsê Şêvra Leşkirî ya PDKÎ got, buhaya ku me îsal bi xwîna xortên xwe yên herî baş dayî, vê yekê diselimîne ku em amade ne, bo dayîna her nirx û buhayek din, û herweha tekez kir ku aliyên Kurdistanî, gerek kûrahiya stratejiya hevdû bin, wate xebata me piştevaneke mezin e bo dabînkirina ewlehiya Herêma Kurdistanê, lewra Kurdistana Başûr nabe heman zext û givaşê bi kar bîne, ku dewletên dagîrker ên Kurdis-tanê bo xebatkarên parên din ên Kurdistanê bi kar tînin, jibe ku em yek netewe ne, û berjewendiyên me yek in, bi kurtî felsefeya xebata me eva ye ku êdî em rê nedin ku Rojhilat ji vê zêdetir îzole bibe, û gelê me zêdetir nehê çewsandin."

## Larîcanî: Divê îdam-kirina qaçaxçiyan dereng nehê xis-tin bona ku nebin nimêjker



**Sadiq Amlî Larîcanî, serokê Dezge-ha Dadwerî ya Îranê,gotiye ku me tu bername ji bona rawestandina Îda-man tuneye.**

Li gor raporên belavbûyî,Larîcanî di 8'ê Rezberê de li bajarê Meşhedê de daye xûyakirin ku wan tu hêcetek ji bona raw-estandina îdaman tuneye, û em nikarin kesên ku di zîndana de nimêjê dikin ji ber nimêjxwendinê hukmê îdamkirina vê rawestînin.

serokê Dezgeha Dadwerî ji serdozger xwast ku di pirsa darvekirinê de, derengi-yê neke, û bilez cezaya wan cîbicî bike.

Mihemedcevadê Larîcanî di gotobêjekê di gel CNN'ê gotiye ku biryarên girêdayî wan îdaman pêvîstî bi çavdêriyê heye, da ku pêşî li rexneyên welatên din û rêxistinên navnetewî ên mafên mirovan were girtin, lê divê ku meclis û şêvra çavdêriyê (nîgehban) vê yekê bipejirîne.

Komara Îslamiya Îranê yek ji van we-latan e, ku di cîhanê de di warê darve-kirinê di rêza duyem de ye, û parêzerên mafê mirovan di vî warî de rejîma Îranê bi tundî rexne dikin, û radigehînin ku kesên bê tawan gellek caran têne bi-darvekirin.

## Sergotar

### Şerê derûnî

**Kerîm Perwîzî**

Komara sêdarê ya Îsamî, ji riya êrîşa leşkerî û vegerxistina dezgehên serkutkarane ên Îtila'atê û Îtila'ata Spaha Pasdran ve, ciwanên xwedî helwest ên civaka Kurdistanê bi rê ve dibe, û hêzeke berfireh ya serkut û îşkenceyê rê dixe, da ku wan takên nav civaka Kurdisatanê de, bibînin ku xwedî bîr û bawer in, û helwestê digrin, di hemberî stemkarî û hovîtiya rejîmê de, û li ser hêviyên neteweyî û demokratîk pêdagir in.

Lê di biyaveke din de Komara Îslamî ya Îranê bi siyasetên şovenîstî û faşîstî ên xwe, û bi taktîka "Guh nedê û bi ser de zal be" û bi bikarbirina emraz û teknîkên şerê derûnî û propagendeyî, dixwaze ku civaka Kurdistanê di nav de hiloşîne, û bixe qedeman.

Hekî di şer û taktîkên leşkerî û îşkenecekirinê de tenê dikare zextê bo take Kurd bîne, û wan îdam bike, yan xortekî serhildêr şehîd bike, lê bi şerê teblîxî û siyasetên gemar dixwaze ku civakê di destê xwe de kedî bike.

Biyavên şerê derûnî gellek in, lê yek ji biyavên herî metirsîdar ew e ku Komara Îslamî bi siyaseta "Guh nedê û zal be" heya vî cihî diçe pêş, ku hêz û alî û heya takên civaka Kurdistanê, û bi taybetî ên ku xwedî helwesta şoreşgerî ne, û li dijî stemkariyê disekinin, ji hevdu qut bike, û her yek ji wan bi çavê şik û guman ve çav li yê din bike, û ên din bi ketî û stûxwarê vî yan wî dijminî bi nav bike, û tekoşîn û xebata hevdu wekî xizmeta bi filan û filan bi nav bike, û yektir bi alîkariya dijmin tawanbar bikin.

Ew şer û duberekî sazkirin û dudilî pêkanîna, û her carê piştgirtina yekî li dijî yekî din, wisa dike ku Komara Îslamî dibe bi diyarîkerê qada şer û diyarîkerê yasa û çarçoveyên rabûnûrûniştinê, û dikare wisa kar bike ku hemû aliyan di lawaziyê de ragire, û di dawiyê de her çav li dest axa û erbaban bin.

Ji hemiyê metirsîdartir ew e ku îrade û nasnameya mirovî û neteweyî ya xebatkaran û takên xwedîhelwest ên Kurd deskarî bike, û wan têk bişkîne, û wan ji rê derxe, ku bi kuştina yê din, bi destê dijminan ew kêfxweş bibin!

## Rejîma Îranê li mizgevtên bajarê Seqizê de bi dijî PDKÎ diaxive

**Berpirsekî leşkerî û Îtila'ata rejîma Îranê li bajarê Seqizê, dema nivêja Înê de, li mizgevtên "Salih ava û Qewx" de, li dijî Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê propagende kir.**

Li gorî rapora ku gihîştiye malpera Kurdistanmedia, berpirsekî Spaha terorîstî a Pasdaranê ku pileya Serhengî hebûye li mizgevta Salihava ya bajarê Seqizê de li dijî Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, bo hemwelatiyan axavtin kiriye.

Wan her du fermanderên leşkerî yên Spaha terorîstî a Pasdaranê, derbarê hêzên Pêşmergên Partiya Demokratê wiha axvîne, û gotine ku di herêmên derdora bajêr de pêşmerge hene, û dixwazin ku ewlekariya bajêr li nav bibin û daxwaz ji xelkê wî bajarî kirine ku li hemberî vê armanca wan bê deng nebin, û li hember wan ravestin.

Herwiha, di mizgevta "Qewx" de, ragehandine ku, hêzên pêşmerge



biryarê ji Paşayê Si'ûdiyê werdigirin.

Nûçegihanê Kurdistanmedia li bajarê Seqizê ragehandiye ku: Fermanderekî din yê spahê li mizgevta "Salihava" de gotiye ku çend çekdarên wan Partiyan xwastine ku êrîşê bikine bo ser binkeya leşkerî a Salihava'yê, lê bi alîkariya hemwelatiyan û hêzên Besîcan pêşiya wan hate giritin, lê belê, me nekarîn wan çekdarane nas bikin, û her vê derbarê wî berpirsê Spahê daxwaz ji hemwelatiyan kiriye ku ji bo destbiserkirina hêzên pêşmerge, alîkariyê bidin hêzên besîc.

Li gorî gotina xelkên sivîl û şahîdhalan, dema ku wan berpirsên Spaha terorsîtî a Pasdarsanê di mizgevtan de ji bo xelkê axvtin dikirin, derdor bi hêzên ku cilên wan şexsî û leşkerî bûn diparastin, û herwiha ev yeka jî, hilveşîna morala fermanderên Spaha terorsîtî a pasdaranê li Kurdistanê de nîşan dide.

## Kirêgirtiyekî rejîma Îranê hate kuştin

**Di berdewamiya sizadana xwefêroşan û kirêgirtiyên rêjîma Îranê, di navçeya Kamiyaranê de, kirêgirdiyêkî rêjîmê bi tawana îxanet bi gel û nîştiman hate kuştin.**

Li gor nûçeya gihîştî bi malpera "kurdistanmedia"yê,roja Înê demjimêr 5'ê êvarê rêkewt 9'ê Rezbera 1395'an ya Rojî,li navçeya kamiyaranê kirêgirtiyekî rêjîma xwînmij a Îslamiya Îranê,bi navê ''Sidîq Emînî'' xelkê gundê ''Textî zengî'' ji aliyê kesên nenas ve hate kuştin.

Xwefiroşê navbirî,li nava zewî û zarên xwe de, li ser riya ''tewqe giwêz'' gihîşte sizaya xwe ya îxanet bi gel û nîştîman.

''Sidîq Emînî'' kirêgirtyê Rêjîmê, carekê di rêkewta 12'ê Xakelêweya sala 1373'an (1994)'an dikeve ber



êrêşa nîştîmanperweran, lê tenê birîndar dibe, lê di cihê wê de ku navbirî dev ji xiyanetê berde, berdewam dibe li ser vî karê xwe. ''Sidîq Emînî'' di destpêka şoreşa gelên Îranê de çeka xiyanetê li hemberî xebata rewa ya gelê kurd de hildigre.

Nûçegihanê "kurdistanmedia"yê, herwisa ragehand, caşeke dinê bi navê ''Cebar'' jî gihîşte sizaya xiyaneta xwe.

Di mideha derbazbûyî de, çendîn xwefiroşên rêjîmê li ser xiyanetên xwe ên bi gel û welat, ji aliyên welatparêzan ve hatine jinavbirên.

Ku ew yek ew qasê hiloşîna kesayetî û têkşikana îrade û kerameta takekê ye,
ku bi kuştina xortekî nîştiman bi destê dijmineke Kurdistanê, kêfxweş dibe, herwekî ku me mînakên wisa di nva alîgirên çendîn rêkxirawan di beşên curbicur ên Kurdistanê de dîtiye.

Şerek ku di warê siyasî û propagendeyî de, bi taybetî Komara sêdareya Îslamî bi rê ve dibe, bo têkşikandina îradeya neteweya Kurd, dibe takên xwedîhelwest ên Kurdistanê hişyarî vî şerê dijî mirovî bin.

# Îran û Ewlehiya Mirov



**Beşa Duyem: Binpêkirina Hêmanên Ewlehiya Siyasî**

**Sabir Ebdullahîzad**

**Destpêk**

**Dema ku behsa aştî û ewlehiya navneteweyî tê kirin, saziya dewletê weke berpirsiyarê sereke yê rêzgirtina li vê têgeha watedar e. Pêwîste ev sazî têkoşanê bike ku bi her awayî aştî û ewlehiya navneteweyî biparêze.**

Di rastî de dewlet û bitaybet dewletên ku li Rojhilata Navîn de desthilatdarin, hêş di çalakiyên xwe de(çalakiyên navxwe û navmetewî) wateya Westfaliyayî û hişk ya serweriyê esas digrin. Ev jî di demekê de ku îro rojê bi berfireh bûna xebata tevgerên mafên mirovan, êdî dewlet nikare li ser esasê serweriya Wêstfaliyayî tevbigere. Di beşa yekem a gotara bi navê "Îran û Ewlehiya Mirov" de, wateya ewlehiyê, hêmanê ewlehiya mirov û çavkaniyên vê û her wiha binpêkirina Ewlehiya Çandî û bitaybet mafê zimanê zikmakî ji aliyê rejîmê ve hat pêşkêşkirin. Di vê beşê de jî, hêmanek din yê Ewlehiyê ku bi awayeke rasterast cemandina "Serweriya Wistfaliyayî" armanc digre û wekê "Ewlehîya siyasî" tê nasîn û binpêkirina vê ji aliyê rejîma Îrenê ve dê bê pêşkêşkirin.

Kilîda Peyvan: Hiqûqa Navnetewî, Ewlehiya Mirov, Ewlehiya Siyasî, Îran, Mafên Mirovan, Serwerî

Wateya Ewlehiya Siyasî

Ewlehiya Siyasî weke yek ji heft hêmanên ewlehiya mirov li cihê dewlet û serweriyê, girîngiyê dide parastina rûmeta mirovan.

Li gor Raporta Geşepêdana Mirov (RGM) ku sala 1994'ê ji aliyê "Programa Geşepêdana Rêxistina Netewên yekbûyî" ve hat weşandin, Ewlehiya Siyasî tê wateya çarçoveyek ku mirov bikaribe têde gişt maf û azadiyên xwe yên Siyasî, bi awayeke serbixwe û li gor prensîbên navnetweî bikar bîne, bêyî ku tu gef û talûke di dema cîbicîkirina wan mafan de li ser mirov hebe. Li bin saya ewlehiya siyasî de pergala siyasî maf û azadiyan bi fermî dinase û xwe erkdar dizane ku wan mafan li hemberî gefên nawxwe û navnetewî biparêze. Tenê bi vî awayî, jiyana bi ewle ya hemî hevwelatiyan bê ferq û ciyawazî misoger e. Lê dema ku pergala siyasî bawerî bi naverok û wateya hiquqî yê têgeha navborî nebe, gel nikare bi azadî mafên xwe û bitaybet mafên siyasî bikar bîne û bê tirs nerîna xwe ya siyasî ragihîne.

Hêmanên Ewlehiya Siyasî

Li gor prensîbên navnetewî misogerbûna ewlehiya siyasî girêdayî vê çendê ye ku mafên siyasî yên hevwelatiyan bi awayeke qanûnî bên garantîkirin. Di belgenameyên navnetewî de, mafên siyasî her car li kêlega Mafên Medenî(Sivîl) tên bikaranîn. Zêdetir li nîva xalên "Danezana Gerdûnî yê Mafên Mirovan(DGMM)" û bi gişî xalên "Peymana Navnetewî yê Mafên Medenî û Siyasî"(PNMMS) taybet bi wan du beşên mafan e. li gor wan du belgeyan mafên siyasî xwedê hêmanên taybet e ku di hiqûqa navxwe ya Îranê de weke "Mafên Bingehîn" tên pênasekirin. Mînaka sereke ya wan mafan ku piştî "Mafê Jiyanê" weke mafê herî bingehîn tê nasîn, "Mafê Diyarkirina Çarenûsê"ye.

"Mafê Beşdariya Siyasî", "Mafê diyarkirina Pergala Siyasî", "Mafê Demokrasiyê", "Mafê Azadiya Komeleyan", "Mafê Hevwelatîbûnê", "Mafê Aştiyê", "Mafê Kombûnên Aştiyane", "Mafê Parastinê", û hwd, hêmanên din yên girêdayî zincîre Mafên Siyasî ne. Li gor RGM, dema ku ev hêmanên girêdayî ewlehiya siyasî nehên cîbicîkirin, ewlehîya mirov dê bikeve xetereyê û dewlet berpirsiyare ku bi her awayî li hemberî wan mafan serê xwe bitewîne bêyî ku di navbera hewelatiyan de tu ciyawazî hebe. Bê şik şiroveya gişt mafên siyasî û awakirina sêgoşa wan mafan di vê beşa biçûk de ne pêkan e. li ser vê esasê jî dê di du beşên kurt de ewlehiya siyasî di belgenameyên navnetewî de û binpêkirina ewlehiya siyasî ji aliyê rejîmê ve bên pêşkêşkirin.

**Ewlehiya Siyasî di belgenameyên Navnetewî de**

Raste ku çavkaniya bingehîn ya maf û azadiyên siyasî "RGM" nînê lê ji bo yekem car têgeha "Ewlehiya siyasî" weke têgehek hiqûqî di vê raportê de hat bikar anîn(rûpel 32,33). Yek ji taybetmendiyên vê raportê eve ku wateyeke fireh ji bo ewlehiyê berçav digre. Rêziknameya Netewên Yekbûyî (Xalên 1(2), 66, 76), DGMM (bitaybet xala 21'ê), Peymana Navnetewî ya Mafên Medenî û Siyasî(bitaybet xala 1 û 25'ê), Peymana Navnetewî ya Mafên Aborî, Civakî û Çandî(Xala 1'ê), Peymana Emrîkî ya Mafên Mirovan(Xalên 19,20 û 27), Peymana Ewrûpî ya Mafên Mirovan(xala 11'ê), Rêziknameya Afrîkayê ya Mafên Mirov û Gelan(xalên 10, 11, 12, 13 û 14) û hwd, mînakên wan belgenameyane ku li ser hêmanên mafên siyasî baz didin. Her wiha Civata Giştî yê Netevên Yekbûyî di biryarên xwe de(biryarên jimare 545(1952) û 14/1514(1960)) li ser cîbicîkirina Mafê Diyarkirina Çarenûsê weke maka mafên siyasî tekez dike.

Îran û Binpêkirina Ewlehiya Siyasî

Makeqanûna Komara Îslamî li tu xalekê de têgeha ewlehiya siyasî bikar naîne, lê di hin xalan de amajê bi hêmanên ewlehiya siyasî dike. weke mînak di xala 3'yê(Benda 7 û 8'ê) de misogerkirina mafê beşdariya siyasî û azadiyên siyasî bi erkê dewletê dizane. Her wiha Xala 19'ê wekheviya gel, xala 20'ê parastina yasayî, xala 22'yê qedexeya destdirêjiya li ser jiyanê, xala 26'ê azadiya komeleyan û xala 27'ê azadiya kombûnan bi fermî dinase. Lê dema mirov li hin xalên din dinêre, digehe vê qenaetê ku gişt maf û azadiyên mirov di çarçoveya makeqanûna rejîmê de sinordarin û cîbicîkirina wan mafan girêdayî berjewendiyên serweriyê û parastina ewlehiya netewî ye.

Di destpêka makeqanûnê de hatiye ku erkê sereke yê "Destûra Bingehîn" bihêzkirina bingehên baweriya îslamî ye û bizav û tevgerên ku maf û azadiyên siyasî esas digrin li hemberî van erk û armancan tu rewabûnek namîne. Her wiha li gor xala 56'ê ya makeqanûnê, serweriys tam ya li ser gerdûn û mirov mafê xwedê ye û desthilata mirov gêrêdayî îrade û xwasta wî ye.

Bi vî awayî jî him mafê diyarkirina çarenûsê red dike û hem rewabûneke dînî ya nerasterast dide komara îstamî. Ji aliyeke din dema ku erkê diyarkirina siyasetên giştî yên desthilatê tenê di destê rêberê komara îslamî de be(Xala 110(Benda 1'ê)), dema ku berbijêrbûna ji bo serokkomarîyê girêdayî mercên dijî hiqûqa navnetewî be(Xala 115'ê), êdî tu wateya maf û azadiyên siyasî namîne. Li gor şiroveyên yasayî, di makeqanûnê de "Mafê Diyarkirina Çarenûsê" bi "Mafê Serweriya Dînî" tê sinordar kirin û tu derfet nayê dan ku gelên Îranê û bitaybet gelê Kurd bibe xwedê maf û azadiyê siyasî yên ku di belgenameyên navnetewî de bi mafên rewa yên mirovan tên binavkirin. Ji aliyê din Komara Îslamî di piratîkê de jî nîşan daye ku ne tênê di dema tengezariyên siyasî de, herdem mafên siyasî binpê dike. Zextên siyasî, îşkenceya sîstematîk, muameleyên xirab bi girtiyên Siyasî re û îdam tênê hin mînakên biçûk yên binpêkirina mafên Siyasî ne, ev jî di

Dum R:5



## Rasan dikare guhertinên herêmî bigehîne Îranê



Azad Kurdî



Gellek şirovekar û zanayên siyasî berî deh salan digotin, Rojhilata Navîn a niha bi van sîsteman nikare dom bike, wan digotin ku divê guhertinên bilez di van sîsteman de pêk bên ku qewimîn jî, yek li pey yekê. Sedema sereke jî ev e ku ev dever bi derdê hebûna sîstemên totalîter, ne demokratîk dinale û vala ne ji hhemû pîvan û buhayên mirovî û demokrasiyê. Xala sereke ya wan guhertinan, hêrişa hevpeymaniya navdewletî bi serkêşiya Amerîka bû di sala 2003an de bo ser Iraqa dîktatorlêdayî. Di rastî de ev yek bû bingeh ku di welatên din de jî hêdî hêdî ramana serhildan û nerazîbûnan li dijî dewletên totalîter dest pê bibe. Lê gelo stratêjiya azadkirina Iraqê ji hêla Amerîka ve weke xwe rêve çû ? Gelo Amerîka tê de serket ?

Di vî warî de pirr pirs û bersivên eşkere hene piştî 13 salan bi ser vê proseyê. Lê ya ku xuya ye, Amerîka di Iraqê de serkevtinên berçav bidest nexistin û ev welat du destî radestî rejîma Îranê kir da ku derfetên wê yê ajawe xulqandinê zêdetir bibin. Guhertina stratêjiyên Amerîka li Rojhilata Navîn gellek bi qazancê rejîma Îranê xilas bûn. Sedema sereke jî rejîma totalîter a Îslamî ya Îranê bû. Ji ber ku pêla ev guhertinan negîjin rejîma Îranê, wan her zû şerê xwe ligel Amerîka li ser axa Iraqê dest pê kir û piştî çend salan û gellek evraz û nişîvan, Amerîka li ser rêvebirin û pirsên çarenûssaz ên Iraqê li Bexdayê bi eşkere ligel Îranê civiya û ji wê demê pê de Îran bi eşkere bû desthilatdarê Bexdayê.

Niha jî rakirina dorpêçên aborî yên dijwar li ser Îranê ku aboriya wî dewletê rastî têkçûnê kiribû, destê rejîmê vekirîtir kiriye bona berdewamkirina van pîlan û projeyên gemar. Ji xwe armanceke berçav a rejîmê bona lihevhatin ligel Rojava ev bû ku barê dorpêçên aborî li ser xwe sist bike da ku rejîm bi hêsanî bikare li Sûriye, Yemen, Lubnan, Iraq û … mijûlî pîlanên xwe yên gemar be û di hewla bihêzkirina hîlala xwe ya îdeolojîk bibe. Rêjîma Xomêynî her ji destpêka bidestvegirtina desthilatê ve di fikra şandina şoreşa Îslamî ya Xomêynî de bûye bo cîhanê û avakirina împeratoriya Îranê li ser bingeha nasyonalîzma Farsî û bingeha din ayîna Şîe. Ev 37 sal in li Rojhilata Navîn bi hemû hêza maddî û fikrî mijûlî pîlangêrîyê ye bona bihêzkirina hîlala îdeolojîk a Şîe.

Lawazbûna stratêjiyên Rojava li hemberî vê rejîmê derfetên mezin afirindine bo desthilatdarên dîktator li Tehranê ku li gor dilxwaza xwe hemû liv û tevgerên navxwe serkut bikin û zextên gellek zêde bixin ser neteweyên Îranê yên azadîxwaz ku heta ser hestiyan li dijî vê rêjîmê ne, ji aliyê din jî bi keyfa dilê xwe li herêma Rojhilata Navîn tenê di çarçoveya berjewendiyên xwe yên îdeolojîk de rimbazêniyê bike.

Zêdebarê hemû wan lêger û pirsan û gellek fakterên yên din ên têkildar, Îran yek ji welatên herî na seqamgîr e li deverê. Bi awayekê ku vê rejîmê çi bingeh û pêgeheke xelkî ya berfireh nîne. Ji xeynî desthilatdarên rejîmê û kirêgirtiyên wan nebin, pirraniya xelkê dijberên vê rejîmê ne.

Rejîm bi rêya hêzên ewlekarî û leşkerî xwe yên hov, hewl daye hemû liv û tevgerên navxwe serkut û kontrol bike û rê nede çi dengeke nerazî li hundirê welat rabe, bona ragirtina desthilata xwe dest bi hemû kiryarekê birine û dibin. Bê xeber ji vê yekê ku ev îrade û dengê nerazî yê xelkê mîna bombeyên mezin in, ger roja xwe biteqin, êdî dar û ber li ser text û dethilatdariya wan nahêlin. Di encam de jî gel e ku serdikeve û rejîma totalîter û îdeolojîk a Xomeynî ye ku ji nav diçe. Rojhilata Kurdistanê di serdemên berê ve xwedî çendîn serhildan û tevgerên netewî û maf û nasnamexwaz bûye. Armanca hemû şoreş û serhildanan heta Komara Kurdistanê û niha jî bidestxistina nasnameya netewî ya kurdî ye li vê beşa Kurdistanê û rizgarî ji destê dagirker hevdem ligel hemû parçeyên din. Ji ber ku heta pirsa kurd li Rojhilata Navîn çareser nebe, dever ewlehiyê bi xwe ve nabîne.

Destpêkirina qonaxa nû ya xebata PDKÎ li ser navê Rasan (rabûn), hêviyên bihêz dayîne gel, her tişt di nav dilê xelkê de guherî ye, bawerî bi xwebûn ketiye qonaxeke micid û nû û hêvî bi asoyeke ron per vedane. Rabûnê di hundirê welat de hêzeke mezin daye xelkê. Stratêjiyeke mezin a rabûna nû ev e ku li çiya Pêşmerge û li gund û bajaran gel rabe ser pêyan û bi îrade û hevkariya hev, xebatê bikin bona hiloşandina nîrê zordarî û desthilata gemar a Tehranê û cihgirkirina serweriya gel bi ser xwe.

Di vê pêvajoyê de hêza Pêşmerge û gel hev du dikemilînin. Rojhilata Navîn çavrê guhertinên pirr mezin û berfirtir ji yên niha dike, lewma Rabûn dest pê bûye û li gor strajêjiyên xwe dikare pêlên guhertinên herêmê bigehîne Îranê jî û dawî ji evrên reş û tarî ser welat bîne û esmanê welat bi tevahî ronî û şîn bibe.

## Projeyasaya rakirina cezayê îdamê di meclisa Îranê de ye

**150 nûnerên meclisa rejîma Îranê projeyasaya rakirina cezayê îdamê bo qaçaxçiyên madeyên hişber radestî heyeta serokatiya meclisa rejîmê kirine.**

Hesen Newrozî berdevkê Komîsyona Qezayî û Hiqûqî a Meclisa Rejîma Îranê roja Sêşemiyê ew nûçeya piştrast kir, û ragehand ku 100 nûnerên meclisê ew projeyasaya îmze kirine.

Navbirî herwisa got: “Ew pirojeyasa wan tawanbaran bi xwe ve nagre, ku wekî bandên çekdar kar dikin û qaçaxçiyên mezin ên madeyên hişber in”.Mijara rakirina derkirin û birêvebirina hukmê îdamê bo tohmetbarên dosyeyên madeyên muxedir çend salek e ku di Îranê de dikeve ber behsê, lê di van hefteyên dawiyê de ew behs germtir bûye.

Lê çend roj berî niha, Sadiq Amiliyê Larîcanî serokê dezgeha dadwerî, ew mijara rakirina cezayê îdamê ret kiribû. Dijberên hukmê îdamê li ser vê baweriyê ne ku cîbicîkirina cezayê îdamê nekariye ku qaçaxçiyan ji karê xwe poşman bike, û tenê bûye sedema vê ku rûçikê Komara Îslamiya Îranê di cîhanê de lekedar be.

# Komara Îslamî, “Herêma Kurdistan”eke çawa li Başûr dixwaze?



**Elborz Rû’înten**

Kurd bi giştî û Başûrê Kurdistanê bitaybetî bi awayekî berdewam cihê tekeza siyasetên Komara Îslamî ya Îranê bûye. Jiber ku Komara Îslamî li ser bingeha hizriya xwe, wate berevanî ji xwe, li derveyî sînorên xwe, destxistina di nava karûbarên hemû welatan, bo xwe bi rewa dizane, û kar jê re dike, û bi vê jî razî nine, û spayek taybet bi hemû hêza xwe jê re pêk aniye.

Lê niha pirsyar eva ye ku gelo Komara Îslamî Kurd bi giştî û Herêma Kurdistaneke çawa dixwaze?
Bi bersivdana vê pirsyarê em dikarin ku kiryar û lêkewteyên vê siyasetê şirove bikin, wî çaxî xelkê Kurdistanê û aliyên siyasî bêtir dikarin li ser çawaniya peywendî û wergirtina alîkariyên curbicur ji Komara Îslamî ya Îranê bifikirin.

Di desêkê de di siyaseta Komara îslamî ya Îranê de hebûna herêmeke aram di Rojhilata Navîn de ne mumkin e, jiber ku her cure aramî û ewlehiyek di herêmê de, bala welatên xwedîhêz yên cîhan û herêmê û tenanet xelkê Îranê bo aliyê siyasetên çewt û dijî mirovî yên Komara Îslamî dikişîne, piştre vê li pey çareserî û bidawîanîna wan siyasetên çewt bigerin, ku ew jî bi neman û jinavbirina rejîma Komara Îslamî ya Îranê misoger dibe. Lewra taqima deshilatdar li Tehranê bi başî vê yekê dizanin û kar bo neman û têkdana aramî û ewlehiya herêmê dikin.

Têkdana ewlehiyê di qonaxa yekemîn de li Rojhilata Navîn û piştre di cixizek berfirehtir de mezintir dibe heya ku hemû cîhanê digire, lewra ez dibêjim hemû cîhan, jiber ku karbidestên rejîmê li Amerîkaya Başûr û Afrîqayê jî dikarin li jêr navê henardekirina şoreşê destêwerdan û sîxoriyê bikin.

Di vê navberê de bo rejîma Komara Îslamî ya Îranê Kurd ji hemû aliyekî çend qat girîngtir e, Yekem eva ye ku hekî her çalakiyekî gelê Kurd li Herêma Kurdistanê erênî û pozitîv be, bi awayekî ne rasterast jî be, bandorê dixe ser nêzîk bi 15 milyon Kurdan, ku di hundir sînorên Îranê de dijîn û her bandorek jî dikare şoreşekê bixe rê, ku qedera Komara Îslamî ya Îranê bixe tehlûkeyê. Lewra di qonaxa yekem de kar dike ku, rê nede Kurd bi qasekî bihêz nebe ku bikare vê bandorê pêk bîne.

Hekî bingeha despêkî ya bihêzbûna gelê Kurd yekgirtin û yekbûna wan be, bi çêkirina asteng û tevdanîkariyan di navbera aliyên Kurdî de vê yekgirtinê ne mumkin dike, hekî em vegerin û li dîrokê jî binêrin, ev yek bi zelalî xûya dike ku, her cure alîkariyeke Komara Îslamî bo aliyeke Kurdî hatibe kirin, li ser bingeh û bi merca dijatîkirina aliyeke din ya Kurd hatiye kirin.

Hekî îro rojê her nakokiyek di navbera aliyên Kurd de hebe, bêguman destê xwedîhêz yê Îranê tê de ye, û di hinek mijaran de jî, ew dest bi eşekere û bi zelalî xûya dike.
Ji hemûyan balkêştir an bêjim metirsîdartir wî çaxî ye ku bona çareserî û nehêlana nakokiyên di navbera xwe de daxwaza navbeynkariyê ji rejîma Komara Îslamî ya Îranê dikin, ku encama wê jî rewşa nebaş a niha ya Herêma Kurdistanê lê dikeve.

Ku wisa bû siyaseta Komara Îslamî ya Îranê di pêxema lewazkirina Kurdan de bi qasekî zelal û eşkere ye ku hebûna têkiliyên bê sînor digel aliyekî Kurdistanî vê pirsyarê diafirîne ka gelo, çawa şiroveya mijara han ji aliyê ew aliyên Kurdî ve nehatiye kirin?



Anku berjewendiyên hizbî û takekesî bi qasekî binirx in, ku sînorên têkiliyan jê re bên bezandin? Komara Îslamî bona lewazkirina gelê Kurd, pitir hewla lewazkirina Herêma Kurdistanê dide, û di vê derheqê de jî heya radeyekê serkevtin bi dest xistine.

Despêka serhildana kirîza niha ya herêma Kurdistanê, çêkirin û alîkariya zêde ya ragehandinekê ye ku gotina her tiştekî bo xwe bi rewa dizane û bi hemû curekî hewla kirêtkirina ezmûna Herêma Kurdistanê dide. Piştre bi dana fermana bi Malikî bona qetandina bûdceya Herêma Kurdistanê û çêkirina alozî û nakokiyan di navbera Bexda û Hewlêrê de, hewla çêkirina astengan li ser rêya pêşkevtina Herêma Kurdistanê, yek din ji pêngavên vê siyasetê ne.

Bo selimandina vê yekê jî tenê bersiva yek pirsyarî, dikare alîkar be, ew jî eva ye ku gelo biryara han çawa hatiye dayîn, dema ku em dibînin ku Malikî û Bexda bi vî qasî di bin bandora Îranê de ne? Rejîma Komara Îslamî ya Îranê bi vê çendê jî razî nebû, û rûyê êrîşên DAÎŞ’ê ji Bexdayê guherî bo Herêma Kurdistanê û Kurd xist nava vî şerî de, herweha çêkirina hêza “Dîcle” û piştre çend girûpên çekdar li ser sînorên Herêma Kurdistanê ên weke Heşda Şe’ibî, ku bûdceya nêzîk bi 150 hezar çekdar ji wan ji aliyê hikûmeta nawendî, tenê bo vê hêzê hatiye diyarîkirin.

Evana hemû û çendên din jî, zelal e ku tenê di pêxema yek armancî de ne, ev jî nehêlana Herêma Kurdistanê ye û di vê pêxemê de jî pêngav bi pêngav pêşve diçe, û di vê derheqê de jî hinek serkevtin bi dest xistine. Eşkere ye ku serkevtinên han jî bo Komara Îslamî, di bin siya hinek Kurdan de hatine misogerkirin. Jiber ku hekî alîkariya Kurdan bo pîlangêriya rejîmê nebe, cîbicîkirina wan bo Komara îslamî pir zehmet dibe, jiber ku gelê Kurd dikare hêzeke weke DAÎŞ’ê şikest bide, û deverên xwe yê veqetandî ji axa herêma Kurdistanê careke din vegerîne, û sînorên xwe diyarî bike, lê nikare çareseriya nakokî û arîşeyên navxwe bike.

Lewra Komara îslamî ya Îranê hertim herêma Kurdistanê bi lewazî dixwaze, bi qasekî lewaz, ku şer û alozî di nav de hebe, wî çaxî bi Kurdên hemû cîhanê û Kurdên Îranê bêje ku, lê binêrin hekî hûn jî azad bin, eva wê bê serê we, û di vê pêxemê de jî tekoşînê dimeşîne. Lewra her aliyekî Kurdî ku bixwaze pişta xwe bi rejîma Îslamî ya Îranê û piştevaniyên wê ve girê bide, gerek çend caran bifikire.

Doma R:3

demekê de ku ewlehiya siyasî kok û bingeha aştiya mayinde ye lê gişt welatên dinyayê.

**Encam**

Li gor “Ewlehiya Siyasî”, binpêkirina mafên siyasî bi her awayî qedexe ye. Ji ber ku dewlet li her derî çavkaniya sereke ya gefa li ser ewlehiya siyasî ye, sala 1994’ê “Programa Geşepêdana Rêxistina Netewên Yekgirtî” di “Raporta Geşepêdana Mirov” de, Ewlehiya Siyasî weke yek ji heft hêmanên girîng yên ewlehiyê nav dibe. Di gişt belgenameyên navnetwî yên girêdayî mafên mirovan, amaje bi maf û azadiyên Siyasî tê kirin ku bingeha ewlehiya siyasî ye. Lê dema mirov li yasayên komara îslamî û bitaybet makeqanûnê dinêre, û piratîka rejîmê dide ber çavan, digehe vê encamê ku tu pêbendiya rejîmê bi wan belgenameyan nîne, û diyarkirina “Reporterê Taybet bi Mafên Miroven” ji aliyê “Konseya Mafên Mirovan yê Netewên Yekbûyî” ve, bingeha xwe ya sereke li binpêkirina maf û azadiyên siyasî digre. Bi wan kiryarên ne_rewa û çewt yên li dijî gêlên Îranê jî aştiya navxwe tu car ser nagire. Li gor hiqûqa navnetewî asta ewlehiya siyasî girêdayî asta demokrasiya welat e. Naveroka ewlehiya siyasî vê rastiyê digehîne ku her binpêkirinek maf û azadiyan bitaybet maf û azadiyên siyasî dikare bibe sedemê şer û nakokiyên dijwar. Bitaybet dema ku mafên kêmnetew an netewên bindest tê binpêkirin, berpirsiyarê binpêkirina astî û êwlehiya navnetewî dewlet e.

# Rasan û nîştimanfiroş



**Helgurd Rojhilatî**

Kurd zêdetir ji hovîtiya dijmin û dagîrkar, şikest ji destê kirêgirtiyan û nîştimanfiroşan xwariye. Jiber ku Kurd neteweyke cesûr û camêr e, têkbirina wan di qada şer de dijwar e, û sedem jî hêza wî ya baweriya bi armancên xwe, û xesletên wê ên cesûrane ye.

Lê berdewam kirêgirtî û welatfiroşan kariye ku Kurdan ji armancên wê dûr bikin. Pirsyar ew e ku çima û bi çi nirxekê kirêgirtî wê îxanetê dike. Dîrok pirr e ji wan çîrokan, ku dijmin di dawiyê de bona têkbirina Kurdan hawara xwe bo nîştimanfiroşan dibe, û tenê bona vê ku bikare serkevtinê bi dest bixe, yan dagîrkariya xwe bidomîne, hinek ji bi nav îmtiyazan ku gellek caran jî gellek biçûk in, û gellek caran jî mafê vî kesê kirêgirtî ye, lê berdewam kirêgirtî û nîştimanfiroşan kariye ku Kurdan ji armancên wê dûr bixin. Pirs ew e ku çima û bi çi nirxekê kirêgirtrî vê îxanetê dike.

Vê yekê ew qas di kultura me de deng vedaye, ku navê “caş” li ser wan hatiye danîn, ku ew yek vedigere ser nivîskarê navdar ê Kurd Mamosta Hejar.

Felsefeya vê bi nav kirinê jî, vedigere ser vê yekê ku caş tenê jîndarek (canliberek) e ku pêş diya xwe dikeve. Herwek çawa ku li ber bêçareyiya dijmin di têkbirina Kurd de, ew kirêgirtî bi xwe pêş dijmin dikeve. Heya ew yek di şerê herî dawî ê pêşmergeyên PDKÎ ên qehreman de xûya ye. Herçend ku dîroka nîştimanfiroşiyê vedigere bo demên kevn, lê di Komara Îslamî de vedigere ser destpêka şoreşa gelên Îranê, piştî vê ku taqma deshilatdar di kontrola Kurdistanê de şikest xwarin, û hawara xwe birin ber avakirina hêzeke wisa ku navê pêşmergeyên Misilman li ser wan danîn, û ew hêz di çarçoveya hêza Hemze de, kete bin deshilata Mihemed Birûcirdî de.

Armac ew bû, ku ew hêz pêş dijmin bikeve di dema şer de. Eva kengê ew bîrkirin li cem nîştimanfiroşan çê dibe, ku bo çi li ser xaka Kurdistanê ew bikevin pêş dijmin de, bona parastina dijmin û Kurd jî birayê xwe bide kuştin û gelo ev nirx çiqas e ku bi wan tê dayîn, bo karekî wisa?. Di rastî de êdî sebra kurdan di vê mijarê de nemaye, û her kes xwe bi piştevanê Komara Îslamî bizane eva wê bikeve ber kerb û kîna pîroz ya gel.

Ew çenda jî di gotinên sekreterê giştî ê PDKÎ de derdikeve, ku daxwaz ji kirêgirtiyan dike, vegerin himbêza gel û nîştiman, jiber ku dijminê me tenê Komara Îslamî ye. Ew gotinane gellek girîng in, û şoreşa Kurd berdewam e heya wê demê ku ew dev ji karê xwe ê qirêj berdidin, û gel wan efû dike. Di heman demê de ew yek îradeya bilind ya gel bo serkevtinê nîşan dide. Jiber ku bi hewce zaniye ku peyameke bi vî awayî bigehîne, bona vê ku hindî



dereng nebûye, ew dev ji karê xwe ê qirêj berdin, hekî ne ewê ji aliyê xelkê ve bêne cezakirin. Lê em dibînin ku Komara Îslamiya Îranê her wekî salên berê dest kiriye bi besîckirina xelkê li dijî “rasan” a PDKÎ, û bona serkevtina di vê siyasetê de hawara xwe bo derevan û bo zextxistina li ser xelkê biriye.

Eva ku dijmin dest bi siyaseteke wisa dike, cihê heyrîmanê nine, jiber ku şikesta xwe di derketina “rasan”ê de dîtiye, lewra jî bi hemû awayekî ketiye tengasiyan de, û kar dike bona besîckirina xelkê, bi her nirxekê be. Lê cihê matmayînê ye ku kurdek carna ji hevtayê xwe yê Fars jî kêmtir pere werdigre, lê amade ye ku birayê xwe bikuje, û dikeve pêşiya pasdaran de û amade ye ku canê xwe jî bike qurbanê wan pasdaran. Ew pasdarên ku mijûlî talankirina Kurdistanê ne.
Ya cihê heyrîmanê ew e ku kesê kirêgirtî û caş piştî çend dehikan xizmetê jî, di navçeya xwe de nikare bibe kesê yekem di warê berpirsayetiyê de.

Cihê heyrîmanê ye ku kesê xwefiroş serbarê vê ku encama karê caşan û serşoriya wan di Herêma Kurdistana Başûr de dibînin, lê dev ji karê xwe bernadin.
Lewra dibe ew bilez dev ji karê xwe berdin û pêşwaziyê ji peyama sekreterê giştî ê PDKÎ bikin. Ew dibe bizanin ku ew dahata ku dest wan dikeve di karê xwefiroşiyê de, ew dahat mafê wan e, lê ji wan hatiye zewtkirin û tenê di hemberî xwefiroşiyê de bi wan tê dayîn, û ew jî amade dibe di hember de birayê xwe jî bikuje.

## UNESEF: 385 milyon zarok di bin hejariya tund de dijîn

**Li ser bingeha lêkolînên nû ên Sindûqa Zarokên NY (UNESEF) û banka cîhanî, di cîhanê de, nêzî 385 milyon zarok di rewşa hejariya tund de dijîn.**

Di rapora ku vê saziyê di roja 4’ê Octoberê de belav kiriye, hatiye ku piraniya van zarokan di başûra çolistana Afrîqayê, û herwisa di başûra Asyayê û bi taybetî di Hindê de dijîn.
Li ser vê bingehê di sala 2013’an de, ji her pênc zarokan, yek ji wan di welatên di halê vegeşînê de, bi awayekî navgîn, bi 1.70 EURO’yî dijîn. Lê kesên temenê wan zêdetir bi



nîva vî pereyî dijîn.
UNESEF’ê bo amadekirina vê raporê ji serjimêriya wan welatan mifah wergirtiye ku li ser hev %83 nifûsa cîhanê pêk tînin.

## Nirxa bêkariyê di parêzgehên Rojhilata Kurdistabê de %40 e

**Ji ber sedema bêkariyê Kurd di Îranê de, dest bi karê kolberiyê dikin,û di şert û mercên herî dijwar de jiyan dikin.**

Li gor nûçeyên ku hatine belavkirin,rêjeya bêkariyê di çar bajarên weke Îlam,Kirmaşan,Sine û Urmiyê de gihiştiye asta herî jor,ango ji ber nebûyîna kar xelkê Kurd mejbûr dimînin ku bo dabînkirina jiyan xwe dest bi kolberiyê bikin, û sînoran derbaz bikin ,lê belê hêzên rejîma Îranê, bi bê lêpirsîn li ser sînoran, wan didin ber gulleyan û jiyana wan jê distînin. Di wan bajarên navbirî de, %80 ji



kargehan û yekîneyên berhemanînê hatine daxitin, û %20 ji wan kargehên ku çalak in, li jêr zexta rewşa xirap ya aborî de ne. Nirxa bêkariyê jî di van çar parêzgehan de,

nêzî %40 e, û di salên 2013 û 2014’an de nirxa vegeşîna aborî di parêzgehên Kurdistana Rojhilat de ji sedî “-12” bû.

# Nerîna Lîderan



**Larîcanî:** "Nediba îzin bi Wezîrê Abriyê ê Almanyayê hatiba dayîn, ku bê Îranê".



**Ehmedînijad:** "Ez li dijî serkuta sala 1388 (2009)'an bûm".



**Muhsin Rizayî:** "Piştî azadiya Xuremşehrê, nediba hêzên me çûbana nava xaka Îraqê de".



**Mûstafa Ozçelîk:** "Kurdistan di wîjdanê mirovahîyê de birîneke ne pêçayî ye."

## Di Tirkiyê de derxistina polîsan li ser kar berdewam e

**Di doma li ser kar derkirina dijberan li ser kar, hikûmeta Tirkiyê 12 hezar polîs li ser kar derkirin.**

Li gora nûçegihaniyan, operasyona li dijî alîgirên Fethullah Gulen di Tirkiyê de berdewam dike, û piştî girtina birayê Gulen, hate ragehandin hejmara polîsên li ser kar derkirî gihîşte 12 hezar kesî.

Ew operasiyon di 81 bajarên Tirkiyê û Bakûra Kurdistanê de hatin encamdayîn, ku di nava wan 12 hezar polîsan de, 523 kes polîsên payebilind in.

Berî niha jî hatibû ragehandin ku bi hezaran mamostayên xwendingehan jî li ser kar hatine derxistin, ku ew kiryara hikûmeta Tirkiyê ji aliyê Kurdan ve bi tundî hate rexnekirin, û Kurd dibêjin hikûmet bi hêceta cezakirina alîgirên Gulen, Kurdan jî ceza dike, eva di halekê de ye, ku gellek kesên bê tawan di vê navberê de dibin qurbanî.

Hêjayî basê ku cuda ji vê ku parlementoya Tirkiyê, operasiyona derveyî sînor bo salek din dirêj kiriye, rewşa awarte jî bo sê mehên din dirêj kiriye, jiber ku



bas ji egera derbeyeke din ya leşkerî di Tirkiyê de tê kirin.

## Di bajarê Merîwanê de, xwepêşandanek li dijî tankêrên sotemeniyê bi rê ve çû

**Akinciyên bajarê Merîwanê li hember kêmtirxemiya berpirsên hikûmetê derhrq tirsa tankêrên sotemeniyê li ser jiyana hemwelatiyan xwepêşandanek bi rê ve birin.**

Li gor rapora Ajansa nûçegihaniya Kurpayê,îro Sêşemiyê 13'ê Rezbera 1395'an,xelkê bajarê Merîwanê li dijî tankêrên sotemeniyê ku li ser rêya vî bajarî tên û dicin, û jiyan hemwelatiyan xistine metirsiyê de, xwepêşandan bi rê ve birin.

Hemwelatiyên bajarê Merîwanê ji ber sebeba xemsariya berpirsên hikûmetê, a ji ber vê bûyerên bijan yên ku bi sebeba tankêrên sotemeniyê çêdibin, ev xwepêşandane bi rê ve birin.
Herwiha kempêynek di bin navê "Na bo tankêrên mirinê" ji aliyê çalakên Kurd pêk hatiye, û daxwaza wan ev e ku pirsgirêka hatin û çûyîna tankêrên sotemeniyê ku jiyana xelkê xistiye metirsiyê,bê careser kirin.
Tankêrên hilgirê sotemeniyê li bajarên Kurdistanê heyanî niha gellek bûyerên bijan pêk anîne.

Berpirsên hikûmeta Îranê û Wezareta Rê û Banan tu gavek ji bona çareaserkirina wan pirsgirêkan neavêtiye.
Ev xwepêşandana xelkê bajarê Merîwanê seba wê bi rê ve diçe ku demjimêr 10'ê şeva Sêşemiyê 6'ê Rezberê li ser rêy "Nigil" li nav Sine û Merîwanê tankêreke hilgirê sotemeniyê vergeriya, û ji ber vê yekê jî 6 trombêlên din jî rastî vê bûyerê hatin.
Di vê bûyerê de hemwelatiyekî Merîwanê ê bi navê "Emar Emîdî" jiyana xwe ji dest da.



Birîndarên din jî ku birîna hinek ji wan giran e, bo nexweşxwaneya Êsfehanê û bo çend bajarên din veguhestine,lê belê di heman demî de 3 kesên din duh şevê jiyana xwe ji dest dane, ku nasnameya wan wiha ye: "Mîlad Azerî xelkê Merîwanê,Îsma'îl Bazgîr xelkê gundê Hesen Qire a ser bi bajarê Merîwanê û Şervîn Sewze xelkê Nodşe".

Rêyên ne îstandard,xemsariya ajotvanan û trombêlên Kevn,yek ji sebebên sereke yê van bûyerên hatin û çûyînê di Îranê û Kurdistanê de ne, û her roja ku derbaz dibe hejmara qurbaniyan zêde dibe .

## Kuştina zarokên Helebê, rayedarên Sûriyê nîgeran nake

**Nûnerê Sûriyê li NY de, dema ku nûçegîhanê, Kanala El-Cezîrê , derbarê bombebarankirina nexweşxaneyên bajarê Helebê ji aliyên hêzên Esed ve, jê pirs kir, di bersivê de ew pê kenî.**
Li gorî kurte fîlma derbarê bersivaBeşar Ce'iferî nûnerê dewleta Esed bo pirsa nûçegîhanê kalana El-Cezîrê, wiha tê xûyakirin ku kuştina zarokan û avarebûn, wêranbûna avahiyên hemwelatiyên sivîl ên bajarê Helebê ku piraniya wan kurd in, ji ber êrîşên esmanî yên Balafirên artêşa Beşar Esed û herwiha Balafirên Rûsiyê ve, tu qîmet nîne.

"Samanta Pavêr", Nûnerê Amerîka li Saziya NY de, derbarê pêkenîna "Beşar Ce'iferî " nûnerê dewleta Sûriyê li Saziya NY de wiha dide zanîn, kuştina hezaran însanên sivîl li bajarê Helebê, tu bandorek li ser karbidestên Sûriyê û herwiha berpirsên Rûsiya ku piştevanê wî welatî ne nîne.

Herwiha Saziya Pizîşkên Bê sînor, welatên Rûsiya û Sûriya bi pêkanîna şerê hovane li Helebê de tawanbar kirin, û "Cuan Lîv" serokê Saziya Pizîşkên Bê sînor, piştî civîna Şêvra Ewlekariya NY ya derbarê, dabînkirina îmkanatên dermanî ragehand, ku di wî şerî de, tenê xelkên sivîl û cihên dermanî dibine armanc.

# Kiwêstan Qehreman:

## Di sala 1988'an de, ez û malabata xwe, û xelkê bajarê Helebçê ketin ber kîmiyabaranê

**H: Arif Vêlzî**

Di nava ewraz û nişîvên şoreşa pir ji xwîn ya Kurd û Kurdistanê de di sedsala derbzabûyî de, berdewam gelê me ji aliyê her çar welatên dagîrker ve



hatiye qir kirin, lê bi vî halî jî dayîkên Kurdistanê ji erkên xwe yên dayîkane berdewam bûne û em dibînin ku, çiqas rind e, di nava jiyana şoreşê de serbarê hemû kêmasiyan, zarok bi awayekî tên perwerdekirin ku, weke nifşa pêşerojê û birêveberên Kurdistana azad, tên hesibandin.

Kiwêstan Qehreman yek ji wan şêre jin û dayîkên Kurdistanê ye ku, serbarê hemû êş û elem û awareyî û destengiya di nava tevgera rizgarîx-



waziya Kurdistana Rijhilat bi rêberiya PDKÎ de, kariye ku bi awayekî herî baş, erkên xwe yên hizbî û hevjînî û dayîkatiyê birêve bibe û weke jineke serfiraz û serkewtî, di nava tevger û malbata xwe de, xwedî derkeve.
Kwêstan Qehreman Keyxosrew ya naskirî bi Kwêstan Mistefayî, keça

Qehreman, berwarê 5'ê Newroza sala 1344'an a Rojî (1965), li gundê Hawar a ser bi bajarê Helebçê hatiye dinê.
Kiwêstan Qehreman kariye ku here xwendingehê û qonaxên xwendinê heya wergirtina bawerînameya Dîplomê bidawî bîne û niha ji di xwendingeha "Rojhilat" de, ku xwendingeha Kempa Azadî ya ser bi PDKÎ'ê ye, karsaz e.

Kiwêstan Qehreman derheq bi nasyariya tevî PDKÎ di çaxê xwe de dibêje ku: " Sala 1986'an pêşmerge û hêzên PDKÎ li derdora gundê me baregehên xwe ava kiribûn û çalakî dimeşandin,eva jî bûye sedem ku ez PDKÎ ku partiyeke xebatkar yê Kurdistana Rijhilat e, ji nêzîk ve bibînim û nas bikim".
Kiwêstan Qehreman herweha derheq bi jiyana xwe ya hevpar dibêje ku: "Di roja 27'ê heyva Befranbar a sala 1369'an a Rojî, li "Bêşê" ku cihê akincîbûna Melbenda Şomal û Hêza Agirî ya PDKÎ bû, min digel Teymûr Mistefayî ku berpirsê wî çaxî yê melbend û hêza navbirî bû, jiyana hevpar ava kir û tevlî jiyan û xebata di nava refên Hizba Demokrat bûm".



Jine xebatkara Demokrat Kwêstan Qehreman derheq bi berhema jiyana xwe ya hevpar digel Teymûr Mistefayî ku niha Endamê Deftera Siyasî ya PDKÎ ye dibêje ku: " Berhema jiyana min digel Teymûr Mistefayî 2 kur û keçek in. Zarokê me yê yekemîn kurek e bi navê Agirî ku sala 1370'ê li "Bêşê" hatiye dinê û niha xwdî bawerînameya Master li "Biznês"ê ye û akinciyê Hewlera serbajarê Herêma Kurdistanê ye, zaroka me ya Duhemîn keça me Aşîtî ye ku sala 1371'an a Rojî li "Ênzê" ya ser bi çiyayên Qendîlê hatiye dinê û xwediyê bawerînameya Bekaloryos e li "Endaziyariya Petrolê" û akinciyê bajarê Hewlêrê ye. Zarokê me yê Sêhemîn Diyar e ku sala 1377'an li bajarê Koyê hatiye dinê û îsal di taqîkariya Diplomê de pişikdarî kir û liser asta bajarê Koyê bi pileya yekemîn biser ket".

Kiwêstan Qehreman herweha derheq bi çavnihêriya xwe ji PDKÎ û hevjînê we dibêje: "Çavnihêriya min ji PDKÎ û hevjînê xwe eva ye ku, heya gehîştina bi armancên gelê Kurd, û di pêxema bidestxistina azadî û serbixweyîya Kurdistanê de, rêbaza pîroz ya Demokratê bidomînin û bernedin".
Jine şoreşvan a qada xebata Rojhilatê Kwêstan Qehreman roja herî xweş a jiyana xwe ji Agiriyê re weha bas dike: "Roja herî xweş a jiyana min ew roj bû ku, rêberê gelê me Dr.Şerefkendî ez û hevjînê min Teymûr li "Bolê", bo xwarineke Êwarî mêhvan kirin, jiber ku eva yekemîn car bû ku min ew rêberê mezin yê gelê xwe ji nêzîk ve didît, û eva jî bo min şanaziyeke mezin bû û tu carî wî mêhvaniyê jibîr nakim".

Kwêstan Qehreman herweha roja herî nexweş a jiyana xwe jî weha tîne ziman: "Roja herî nexweş a jiyana min, roja kîmiyabarana bajarê Helebçê bû di sala 1988'an de, jiber ku ez û malabata min û xelkê bajarê Helebçê ketin ber kîmiyabaranê, û bi hezaran kes xelkê sivîl û bê tawan hatine kuştin".

Kiwêstan Qehreman di dawiyê de rû li dayîk û keç û jinên Kurdistanê dike û bi vê gotinê dawiyê bi hevpeyvîna xwe digel rojnameya Agirî tîne: "Ez daxwazê ji jin û keç û dayîkên Kurdistanê dikim ku piştevanê hevjînên xwe yên pêşmerge bin û hekî bikarin bixwe jî tevlî refên Hizba Demokratê bin, di pêxema azadî û serbestiya Kurdistanê de, herweha hewla pêgehandin û perwerdekirina serdemiyane ya zarokên xwe bidin bi ruhekî Kurdane, da ku bikarin nifşekî perwerde bikin û di pêşerojê de xizmetkarê gel û welatê xwe bin".

## Hicaba bi zorê, şetrenca qehremaniya jinên cîhanê tûşî astengiyan kir

**Vekişiyana du jinên lîstikvan ên şetrencê ji pêşbirkêya qehremanî ya jinên cîhanê, ku di meha Rêbendanê îsal de, dê pêk were,careke din ew behsa çêkiriye, ku gelo kîjan di berjiwendiya jinên Îranê de ye: kêmkirina hemû pêwendiyan bi Îranê re, yan jî berevajiyê vê, pêkanîna pêwendiyan bi hemû jinên cîhanê re?.**

Hinek ji kesên ku li dijî hicaba bi zorê ne, û berevaniyê ji wan lîstikvanan dikin, dibêjin: Federasiyona navneteweyî a şetrencê nabe ku pêşbirkêyan di Îranê de pêk bîne. Herwiha ew digel amadebûyîna siyasetmedarên jin ên "xaricî" jî, ku bi hicab ve diçine Îranê, dijayetiyê dikin, û dibêjin ku Komara Îslamî biryarên xwe, ne tenê bi ser jinên Îranî, belku li ser jinên cîhanê de jî disepîne, û kesên ku dikarin, dibe nekevine bin barê hicaba bi zorî de.

Di heman demê de, hinek ji çalakên mafên jinan di Îranê de, karekî wiha li dijî berjwaendiyên jinan dizanin, û bawar in ku tenê encama vî karî, îzolebûna jinên Îranî dibe.



## Zarokên Helebê di xwendingehên bin'erd de jî dibin armanca êrîşan



**Rûsiye û Sûriye bi bombeyên çeperşikên, emanê nadin zarokên Helebê di xwendingehên bin'erd de jî.**

Saziya "Sêyf dê çildirin" di daxuyaniyekê de ragehand ku zarokên Helebê serbarê vê ku xwe di xwendingehên bin'erd de jî diveşêrin, lê dîsan jî bombeyên çeperşikên ên Rûsiye û Sûriyê emanê nadin wan.

Vê saziya xeyrî dewletî, bikarîanîna van bombeyan, wekî cinayeta şer bi nav kiriye.

Di doma daxuyaniya vê saziyê de hatiye ku: "Xwendingehên rojhilata Helebê, biryar bû ku roja Şemiyê dest bi karên xwe bikin, lê bi sedema êrîşên hovane bo ser bajar, daxistî man, û nêzî 100 hezar zarok ji perwerdehiyê bêpar man".

Zêdetir ji hefteyekê ye ku hêzên dewleta Sûriyê bi piştevaniya hêza esmanî ya Rûsiyê, êrîşeke mezin bona kontrolkirina bajarê Helebê dest pê kirine. Ew herêma ku niha di destê dijberên Sûriyê de ye, 250 hezar xelkê sivîl tê de dijîn.

Her di vê derheqê de, alîkarê sekreterê giştî ê NY "Obrayn", di warê karûbarên mirovî de ragehandiye ku rewşa niha ya Helebê, karesata herî metirsîdar ya mirovî ye ku di Sûriyê de rû daye.

Navbirî di civîna taybet ya Konseya Ewlekariya NY de jî ragehand: "Alîkariyên tendurustiyê di herêmên dorpêçkirî ên rojhilata Helebê de, dibin armanca êrîşan, û zarok xisara herî zêde di vê derheqê de dibînin".

## Di Îranê de î'itiyad di nava jinan de asayî bûye

**Î'itiyada jinan êdî di Îranê de asayî bûye, û ew yek bûye sedema pêkhatina nîgeraniyên curbicur di biyavê xisarên civakî di nava jinan de.**

Ebas Dêylemîzade, birêvebirê "Komeleya jidayîkbûneke din" ragehandiye ku li ser bingeha şiroveya wan datayên ku me di van salên dawiyê de hebûn, î'itiyada jinan êdî niha eşkere ye, bi vê wateyê ku di salên dawiyê de, î'itiyada jinan bi awayekî veşartî bûye, lê niha gihaye astekê, ku tirsa xisara civakî heye.

Li gora texmînan 9-10 ji sedî ji nifûsa mu'itadan di Îranê de jin in. lê Saziya "Bêhzîstî" ragehandiye ku zêdetir ji %15 a mu'itadan jin in.

Ebas Dêylemîzade, birêvebirê "Komeleya jidayîkbûneke din" derheq rêçareyên pêşigirtina ji î'itiyada jinan ragehandiye ku pêştir bona kêmkirina rêjeya î'itiyadaê di nava jinan de, ji şêweyên wisa mifah wergirtine, ku nekariye bibandor be.

Î'itiyad yek ji diyardeyên herî xisarhilgir ên civakî di Îranê de ye, bi awayekî ku %65 ji zexta li ser jinan, %55 ji telaqan, %30 ji zext û lêdana zarokan û %25 ji tawanên qetlê, çavkaniya î'itiyadê ne.

Di Îranê de her sal 500 ton madeyên muxedir tê bikaranîn. Di wan dawiyan de hate ragehandin ku qaçaxa madeyên muxedir her sal 12 milyard Dolarî zirarê digehîne aboriyê. Eva di demekê de ye ku bûdceya "dîfa'î" ya welat 10 milyard Dolar e.



# Hewzeya Êlmiye ya Qomê gefa kuştinê ji rêveberên konsertan dixwe

**Piştî vê ku roja 27'ê Îlonê Yekemîn konserta "Girûpa Mehbod" bi boneya rêzgirtina ji "Mewlewî" hate lidarxistin, "Civaka wanebêjên Nawenda wanegotin û fêrkariya zanistî ya Qomê" di vê derheqê de daxûyaniyek weşand.**

Nawenda wanegotin û fêrkariya zanistî ya Qomê di daxûyaniya xwe de dibêje ku, kiryara Ferheng û Êrşada Îslamî ya bajarê Qomê derheq lidarxistina konsera navbirî, kareke nelojîkî û cihê şermê ye.

Daxûyanî herweha tekezê dike ku, karên weha, wate lidarxistina konseran li bajarê Qomê careke din nahê qebûlkirin û di ast û pêgeha bajarekî pîroz weke bajarê Qomê de nine.

Di beşek din ya daxûyaniye de serbarê vê ku dibêje konsera han bingehên olî binpê kirine dibêje ku, gerek karbidestên Wezareta Ferheng û Êrşadê û liserweyî hemûyan wezîrê Ferheng û Êrşadê, berpirsyar e ku çima di perepêdana



çanda Îslamî û zîndîragirtina bûhayên olî, pêngavên hewce ne avêtine û piştevaniyê ji birêvebirina konseran li seranserî Îranê dike?

Nawenda wanegotin û fêrkariya zanistî ya Qomê di daxûyaniya xwe de dibêje ku, em serbarê pirotestokirina vê kiryara bê buha û pêdagiriya liser buhayên olî, daxwaza cezakirina birêveberên wan konseran dikin û herweha hoşdariyê didin wan ku, di rewşa niha ya welat de xisaran negehînin pêgeha xelkî ya Îranê, jiber ku sebr û taqeta xelkê dîndar û şarezayên olî yên Şî'e, sînordar e, û hekî serbra me bi dawî were, wê xisarên bi qasekî mezin yên madî û me'inewî bigehin wa ku, qerebûkirina wan ne mumkin e.

Her di vê derheqê de jî "Ayetulla Safî Gulpayganî" jî di civîna digel "Aitada emr bê merûf û nehî ez monker" a najarê Qomê de ragehand ku, gerek karbidestên Qomê birêveberên vê konserê bi tundî ceza bikin.

# Tirkiyê weşana 10 kanalên Kurdî ragirtin

**TURKSAT'ê li ser biryara hikûmeta Tirkiyê weşana 10 kanalên Kurdî dane rawestandin.**

TURKSAT'ê şeva borî 28'ê Îlona 2016'an, 10 kanalên Kurdî dane sekinandin, ku di nava wan de kanalên pirr bîner ên wekî Jiyan TV, Zarok TV, Hayatin Sesî TV, û Van TV têne dîtin.

Partiya Demokratîk a Gelan jî derbarê vê biryarê de daxuyanî da. Di daxuyaniya HDP'ê de wiha hate gotin: "Desthilatdariya AKP'ê dixwaze wekî hemû qadên din, di aliyê medayayê de jî dengên cuda bifetisîne. Çend kanalên weke Azadi TV, Denge TV, Jiyan TV, Hayatın Sesi, TV 10, Van TV, Zarok TV ji satelata TURKSAT'ê hatine derxistin. Ew dîsa şaş difikirin. Dengê weşana azadiyê nahê birrin."



Heya niha jî wan televîzyonan daxuyaniyên fermî belav nekirine.

Hêjayî basê ye ku piştî têkçûna derbeya leşkerî ya li Tirkiyê de, hikûmeta Tirkiyê cuda ji vê ku dest kiriye bi destbiserkirina wan kesên ku dest di derbeya leşkerî de hebûne, dest kiriye bi daxistina rojname û kovar û televîzyonên ku bi gotina wan alîgiriya derbeya leşkerî kirine. Di heman demê de, vê derfetê bi kar tînin, bo daxistina kovar û rojname û televîzyonên ku nêzî HDP'ê ne, û ji bo mafê Kurd kar û xebatê dikin.

Heya niha çendîn carî parlementoya Ewropayê û rayedarên welatên ewropayî û komeleyên mafê mirovan rayedarên Tirkiyê rexne kirine ku bi hêceta alîgiriya ji

# Gotinên Navdaran



A: FIRAT CEWERÎ

Destpêkirin, nîvdawîanîn e.
**ovidius**

Em ji her kesên ku me diecibînin hez dikin, lê em ji her kesên ku em diecibînin hez nakin.
**La Rochefoucauld**

Ger hûn dixwazin bila her kes bi başî behsa we bikin, wê çaxê hûn behsa xwe mekin.
**Pascal**

Her tim hinin din mînak bidin.
**D.Carnegie**

Ji berdêla tu ê hin tiştan nîvî bizanibî, bi tiştekî nizanibe çêtir e.
**Nietzshe**

Em nizanin em ê bi çi bin, lê em dizanin em çi ne.
**Shakespeare**

Yên ku zanebûna wan zêde dibe, derdên wan jî zêde dibin.
**Încîl**

Yên ku hinin din bizanibin zane ne, yên ku xwe jî bizanibin biaqil in.
**Lao-Tsze**

# Ziman



## Beşa 8. Dema axaftin û nivîsînê

**Hûn jî navên hinek pêxwarinên devera xwe bibêjin û binivîsin.!**

1. ......................
2. ....................
3. .....................
4. ....................
5. ....................
6. ....................



## Beşa 9. Dema xwendinê

**Navên hinek vexwarinan!**

| | | | |
|---|---|---|---|
| Av | Dew | Şerbet | Xweşav |
| Şîr | Çay | Avmêwe | |



## Beşa 10. Dema axaftin û nivîsînê

**Hûn jî navên hinek vexwarinên devera xwe binivîsin.!**

1. ..............................
2. ..............................
3. ..............................

# Tiştonek



A: Mahir Berwarî

1. Nexşe
- Çiyayê bê kevir, deryaya bê av, rêlê/daristan bê dar, bajarê bê mirov.
- Bi pişt e, bê zik e, bi dest e, lê bê ling e, bi dev e, bê didan e, bi çav e, lê nabîne.
2. Newroz û hatina biharê
- Daran movik anî, mêşan hingiv anî, miyan şîr anî, kewan rê danî, fesad tazî mayi, mîran xwe da alî, gayan şer hilanî.
3. Têlefon
- Li Amedê şîr rija, bêhna wî hate vira.
(* dibe ne gelêrî be)
4. Xem
- Ne li erdî, ne li esmanî, dixot leşê însanî.
4. Tenûr
- Derê wê reş e qubhet e, nava wê sor e, edawet e.
- Kewara agir, hevîr dike nanê hazir.
- Destim le naw wirgî, wirgî be wurge minar e.
- Lêv Reş e bi qîmet, nav sor e bi helamet, bi terî dibemê, bii hişkî dîînimeder, sela ela Pêxember.
5. kar
- Babê mirî gilvilekê di qunê ra
9. Welat
- Dayka daykan e bo mrovî nav û nîşan e.
10. Berîk
- Belot belot, ji serve req e, ji binve pot.
11. Baskê cigara
- Ji serve nivêj, ji binve qirêj.
12. Site û bersite
- Req bi reqî dikevit, sor bi nermî dikevit.
- Dayik berok bav berok, çêlikan tîne sor û zerok.

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



